hejmar 41 Payîz 2007

# KURMANCÎ

rojnameya taybetî ya Enstîtuya kurdî ya Parîsê li ser pirsên zaravayê kurmancî

Min ev nivîsî ne ji bo sahibrewacan
Belkî ji bo biçûkêd Kurmancan

Ehmedê Xanî
(Sedsala XVII)

## Civîna Payîza 2007an

*Civîna 41an ya Kurmancî ji 1 heta 7ê çileya 2007an li Vesterosê, Swêd, li dar ket. Beşdar, di vê civînê de li ser peyvên di qewlên Êzîdîyan û stranan de, peyvên êrmenî di kurdî de, li ser peyvên xanî û fûtbolê û herweha hin peyvên kêmnas xebitîn.*

*Ev hevalên han di civînê de beşdar bûn: Mistefa Aydogan (Mêrdîn), José Bertolino (Parîs), Newzad Hirorî (Dihok), Mehmûd Lewendî (Qerejdax), Emîn Narozî (Batman), Selam Nûman (Qamişlo), Cemal Onursal (Cizîr), Behroz Şucaî (Kotol), Têmûrê Xelîl (Rewan), Reşo Zîlan (Agirî).*

*Encamên xebata vê civînê di vê hejmara Kurmancî de tên belav kirin.*

# Peyvên di qewlên Êzîdiyan de

**Amadekar: Reşo ZÎLAN**

| kurdî | tirkî | fransizî | îngilîzî |
|---|---|---|---|
| şefiqîn | şafak sökmek, zuhur etmek, | 1) pointer (pour l'aurore) ;<br>2) apparaître, se mettre à exister | 1) to break (day), to dawn;<br>2) to appear, to come to existence |
| roj ziriqîn; zeriqîn | tan ağarmak | se lever (pour le jour) | to dawn, to break (day) |
| tifiqîn | oluşmak | être formé, se former | to be formed |
| sêqal; sîqal | parlatma, perdahlama | 1) action de cirer, de polir, cirage<br>2) lustre, brillant | 1) polishing;<br>2) lustre, gloss |
| daman | etek | jupe | skirt (of a dress) |
| dîndar; dîdar | huzura çıkma, görünme | audience, visite | audience, visit |
| bendî; benî | köle | esclave | slave |
| virê kirin; verê kirin | yollamak, uğurlamak | accompagner quelqu'un qui s'en va,<br>faire un bout de conduite | to dispatch, to see someone off<br>(on a journey) |
| xewlexane; xewletxane | inziva yeri | lieu d'isolement, ermitage | isoletad place, hermitage |
| sinetxane | yezidi mabedi | lieu de prière yézidi | the yezidi house of worship |
| pêxam; peyam | risalet, mesaj, haber | épitre, message | epistle, message |
| xas | yezidi inancında haslar tabakası | les personnages importants de<br>la religion yézidie | the elite people of yezidi belief |
| doj; dojeh | cehennem | enfer | hell |
| herûher | ilelebet | pour toujours | forever |
| qelender | kalender | bohémien, derviche errant | bohemian, wandering dervishe |
| peşîn; peşyan: beşîn/beşîyan | gülümsemek | sourire | to smile |
| xwedawend; xwedê | tanrı, ilah | dieu | god |
| avanî; avahî | bina, yapı | bâtiment, édifice | a building, edifice |
| hincinîn<br><hincî hincî (pirtî pirtî, çênî çênî) kirin> | ezmek<br>ufaltmak, paramparça etmek | écraser<br>mettre en pièces, émietter | to crush, to bray<br>crumble, tear... to pieces,<br>(make mincemeat of) |
| nijînîn; jenîn | duvar örmek | bâtir un mur (de briques ou pierres) | build a wall... [of brick (stone)] |
| serekî | lahza, an | moment, instant | moment, while, instant |
| zeyînîn; xemlîn | süslemek, bezemek | embellir, décorer parer, orner | to deck, to adorn, to embellısh,<br>to decorate |
| zendî; zindî | canlı, yaşayan | vivant, en vie, vif | alive, living, lively |
| keleş | 1)yiğit, babayiğit; 2) korsan, pirat | 1) héros, brave ; 2) pirate, corsaire | 1) brave, hero; 2) prate, corsair |
| tofan: tayfûn | tufan | déluge | a flood |
| şêresiwar | yiğit suvari | cavalier émérite, courageux | brave cavalaryman |
| tivdîr; tevdîr | tetbir, önlem | mesure, disposition | measure, precaution |
| xendek; xendeq | hendek | fossé, tranchée | ditch, trench |
| qelaştin; kelaştin | yarmak | fendre, entailler | to cleave, to cut through |
| vavirîn | ayrılmak | séparer, être séparé | to separate, to sever |
| vavirandin | ayırmak | séparer (l'un de l'autre) | to part, to separate from one another |
| têr bijî | çok yaşa! | vive! | long live! |
| hebandin | 1) tapmak;<br>2) sevmek | 1) révérer ;<br>2) adorer | 1) to worship, to reverence;<br>2) to adore, to idolise |
| fer | farz | obligation, devoir obligatoire | obligation act, binding duty,<br>worskship obligation |
| vegêrandin | eski dinine döndürmek | convertir à son ancienne croyances | to convert to his old beliefs |
| baran dakirin; barandin | yağmur yağdırmak | faire pleuvoir | to make it rain |
| mûde | yigit, cesur | brave, courageux | brave, courageous |
| gêran | anlatmak, söylemek | dire conter | to tell |
| mencelîq; mencenîq | mancinik | catapulte | a catapult |
| birik: birk | havuz | bassin | pool, pond |
| gal<br><bi gal çûn> | kavga,<br>kavga etmek, ağız kavgası yapmak | querelle, bagarre<br>se quereller, combattre | quarrel, fight, brawl<br>to quarrel, to fight |
| (kanî ; av) der bûn | kaynamak, yerden su çıkmak | jaillir (eau), sourdre | to gush, to spurt (water) |
| kesirîn | bitkin düşmek | être épuisé, tomber d'épuisement | to be exhausted |
| kesirî | yorgun argın | fatigué, exténué | exhausted, tired |
| dilvekir: dilveker | gönül ferahlatici, içaçıcı, sevindirici | agréable, chaleureux | pleasant, heart-warming |
| renîn: rênan | bakmak | regarder | to look |
| lê alandin | sarmak, dolamak | enlacer, entourer | to embrace, wrap around, to surround |
| ho: weha | böyle, şöyle | donc, ainsi | so, thus |
| înan: anîn, hanîn | getirmek | apporter | to bring |
| daînan: danîn | koymak, | mettre, poser | to put, to set, to place |
| çengil: çeng, çepil, çembil | kol | bras | arm |
| sergerdan: serîlêgeryayî | sergerdan, aylak, şaşkın | troublé, confus, étonné, perplexe | confused, bewildred, perplexed |

| | | | |
|---|---|---|---|
| spartin | teslim etmek | remettre | to hand over, to deliver |
| xwe negirtin | 1) kendine hakim olamamak;<br>2) beklememek, sabretmemek | 1) ne pas arriver à se retenir ;<br>2) ne pas avoir la patience de, s'impatienter | 1) to be unable to control oneself;<br>2) not to have any patience<br>to be impatient, to have no patience |
| ber | en, kat | couche, | layer, fold |
| duber | iki kat, eni iki kat | double largeur | double fold |
| nexşandin: neqşandin | nakış işlemek, nakşetmek | broder | to embroider |
| selefxwar | tefeci | usurier | a usurer |
| morandin | mühürlemek | sceller, tamponner | to stamp, to seal |
| fetihandin | fethetmek | conquérir | to conquer |
| sikan: sekan | konak, durak | étape, arrêt | halting place, a stop |
| rihliber | canlı | créature vivante, vivant | living being, living creature |
| zergûn | sarışın | blond | blond |
| qisedar | söyleyen, konuşan, anlatıcı, konuşmacı | conteur, narrateur | storyteller, narrator |
| alîxêr | ehli hayır, hayır sever | philanthrope | philanthropist |
| cirîn; ciriyan | cereyan etmek, olmak | se produire, advenir | happen, to occur |
| şikirandin | şükretmek | remercier, être reconnaissant | to thank, to be gratful |
| olaq | binek | bête de somme | beast of burden |
| dang | etek | jupe | skirt |
| lîn: den | büyük küp | grande jarre | very large earthenware jar |
| kerbab: kerbav | eşekoğlu eşek | bourricot, fils d'âne | baby donkey, small donkey |
| qelsebab: qelsebav | soysuz | dégénéré, bon à rien, bâtard | degenerate, good-for-nothing |
| kurtexulam / qotexulam | yarımyamalak bir hizmetçi | un mauvais serviteur | a bad servant |
| sîber: sî, sih | gölge | ombre | shadow |
| sik | çirkin | laid | ugly |
| simtraş | nalbant bıçağı | râpe (de maréchal-ferrant) | a rasp, a file (for metal) |
| beropaş | ters | vers l'arrière | backward, reverse |
| loqloqo | badi badi yürüme | démarche dandinante | waddling |
| tîqtîqo | kahkaha | éclat de rire | a burst of laughter |
| deng hilanîn | sesini almak, duymak | entendre | to hear |
| deng hildan: deng bilind kirin | sesi yükseltmek | élever la voix | to raise one's voice |
| dengneker | sessiz, sesini çıkarmayan | taciturne, silencieux, tranquille | taciturn, (reticent), silent, quiet |
| sindirûk | sandık, dolap | armoire | cupboard |
| merg: mirin | ölüm, ölmek | mort | death |
| dev, def: ba | yanında | à | to, at, by |
| mêrdar | yiğ it | brave, vaillant | brave, stouthearted |
| koş | kucak | giron | fold, bosom (of a formity) |
| xweşdivî | sevgili, aziz | chéri, bien-aimé | beloved, dear |
| paştov | arta kalan tohum | reste de graines | seed remnant |
| revend: koçer | göçer, göçebe | nomade | nomad |
| nîvek | merkez, orta | centre, milieu | centre, middle |
| cergreşo: kezebreşo | kahrolası | qu'il soit damné maudit | damn him! damn it! |
| dêrîn: dan; dayîn | vermek | donner | to give |
| gurmijîn | alevlenmek | s'enflammer | to blaze, to set alight |
| gergeh | idare, daire | direction, administration | management, administration |
| bor | yağız at | cheval bai | bay horse |
| derz | çatlak | fente, fissure | fissure, slit, split |
| rewaq | 1) revak; 2) önü açık balkon | portique | gateway, gantry |
| beysûs | ışıltı | lumière, lueur | brightness, light, shining |
| dêrîn: hebûn | malik olmak | avoir, posséder | to have, to possess |
| jê efrastin: jê bilind bûn | (…den) yükselmek | s'élever | to rise |
| kufe | küfe | hotte | large deep basket |
| perciftin: perçifîn | şişmek | gonfler | to swell, to blow up |
| hivotin: hevotin: tiraşîn, rende kirin<br><dar bi hevotinê, mirov bi gotinê têne rê> | yontmak, törpülemek<br>"ağaç yontularak, insan ise konuşularak yola gelir" | tailler, émonder, limer<br>"l'arbre s'apprivoise en le taillant, l'homme en lui parlant" | to cut, hew, carve, prune;<br>"a tree becomes tame when it is pruned, a man when spoken to" |

# Xanî, mal, navmale

**Amadekar: Selam NOUMAN**

| **kurdî** | **tirkî** | **fransizî** | **îngilîzî** |
|---|---|---|---|
| mal | konut, mesken, yuva | foyer, logement, maison, domicile | home |
| xanî | ev | maison | house |
| qat | kat, tabaka | étage | floor |
| vîlla | villa | villa | villa |
| xanîk | küçük ev, kulübe, kır evi | cabane, masure | hut, shack |
| rûxanî | ön cephe, ön yüz, cephe | façade | front, façade |
| derîyê derve | dış kapı | porte (f) extérieure | outer door |
| derîyê hewşê | avlu kapısı | porte donnant sur la cour, portail | gate |
| dergeh | ön kapı, cümle kapısı, büyük dış kapı | entrée principale, porte sur rue | street door, front door |
| saûna | sauna, fin hamamı | sauna | sauna |
| hewş | avlu | cour | court, yard |
| dîwarê hewşê, sûra hewşê | avlu duvarı | mur de clôture d'un jardin | enclosing wall |
| jêrzemîn, serdav, qebo | bodrum | cave, sous-sol | basement |
| perçîn | çit, telörgü | haie, clôture | fence |
| enbar | ambar | grange, dépôt | shed, store |
| boriya şirikê | yağmur iniş borusu | goutière | gutter |
| garaj | garaj | garage | garage |
| sênc, pejan | ekili çalılardan oluşan çit | haie ou clôture d'épineux | hedge |
| pêlekan, pêlik, derence | merdiven | escalier | stairs, staircase |
| bixêrî | baca | cheminée | chimney |
| balkon | balkon | balcon | balcony |
| kîler | kiler | cellier, cuisine | food store, kitchen |
| | | | |
| **METBEX** | **MUTFAK** | **CUISINE** | **1) KITCHEN; 2) COOK** |
| pakêtkirin, embalaj | ambalaj | emballage, empaquetage | packaging |
| kîs, torbe, tûrik | poşet, torba | sac, sachet | pouch, bag |
| folye | rulo | rouleau | roll |
| folyeya alîmînyûm | aliminyum kağıdı | rouleau de papier d'aluminium | roll of aluminium foil |
| folyeya naylon | plastik folyo | rouleau de plastique | roll of plastic foil |
| qutî | kutu | boîte | can, canister, box |
| kartona hêkan | yumurta kartonu | carton d'œuf | egg carton, egg box |
| şûşe | şişe | bouteille | bottle |
| şûşeya plastîk | plastik şişe | bouteille en plastique | plastic bottle |

| | | | |
|---|---|---|---|
| qutîya konserveyan | konserve kutusu | boîte de conserve | tin of food |
| pakêt | paket | paquet | packet, package |
| tûb | tüb | tube | tube |
| fincan | fincan | tasse | cup |
| firaqşok | bulaşık lavabosu | évier | sink |
| firin | fırın | four | oven |
| ocax | ocak | cuisinière | kitchen range, stove |
| ocaxa gazê | havagazı ocağı | cuisinière à gaz | gas stove, gas range, gas cooker |
| ocaxa elektrîkê | elektirik ocağı | cuisinière électrique | electric stove or cooker |
| ocaxa neftê, papor | gazocağı | réchaud à pétrole | kerosene heater |
| dolab | dolap | armoire | cupboard |
| sarincok | buzdolabı | réfrigérateur | refrigerator |
| çavî (ya dolabê/masê) | çekmece | tiroir | drawer |
| sifregeh, cihê sifrê | yemek odası | salle à manger | dining room |
| firaqşo | bulaşık makinası | lave-vaisselle | dish washer |

| **SERŞOK** | **HAMAM** | **SALLE DE BAIN** | **BATHROOM** |
|---|---|---|---|
| serşok | banyo | salle de bains | bathroom |
| banyo, cirn | küvet | baignoire | bath, [bath] tub |
| destavxane, avdestxane, qedemgeh | tuvalet, yüznumara | toilettes | toilet, wc |
| destşok | lavabo | lavabo | washbasin |
| dûş | duş | douche | shower |
| dûş kirin, xwe dûş kirin, av li xwe kirin | duş yapmak (almak) | se doucher | to have a shower, to shower |
| dûşkirin, xwedûşkirin, avlixwekirin | duş yapma (alma) | prise de douche, action de se doucher | having a shower |
| ser şûştin, serê xwe şûştin | banyo yapmak | prendre un bain | have (take) a bath |
| serşûştin, serê xwe şûştin | banyo yapma | baignade, bain | having (taking) a bath |
| xwe şûştin | yıkanmak | se laver | to wash oneself |
| xweşûştin | yıkanma | lavage | washing |
| nûnik, destavok, nûnî, qesrûk | oturak, lazımlık | pot de chambre | chamber pot |
| cilşo (makîna şûştinê) | çamaşır makinası | machine (f) à laver | washing machine |
| cilşo | çamaşırcı | blanchisseur, lavandière | laundry |
| cilşok | çamaşırhane | blanchisserie, laverie | laundry |
| cilziwaker | kurutma makinesi | sèche linges | clothes drier |
| neynik | ayna | miroir | mirror |
| sabûn | sabun | savon | soap |
| firçe | fırça | brosse | brush |
| firçeya diranan | diş fırçası | brosse à dents | tooth brush |
| firçeya solan | ayakkabı fırçası | brosse à reluire | shoe brush |
| firçeya cilan | elbise fırçası | brosse à habits | clothes brush |
| firçeya firaqan | bulaşık fırçası | brosse à vaisselle | dish brush |
| firçeya tiraşê | tıraş fırçası | blaireau | shaving brush |
| şeh | tarak | peigne | comb |
| cilêt, gûzan, cûzan | jilet, tıraş bıçağı | lame (f) de rasoir | razor blade |
| gûzan, cûzan | ustura | rasoir | razor |
| rihtiraş, mekîneya rihkurkirinê | elektrikli tıraş makinası | rasoir électrique | [electric] razor or shaver |
| henefî, mûslix | musluk | robinet | tap |
| marpêç, xortum | hortum | tuyau d'eau (d'arrosage) | hose, pipe |
| macûna diranan | diş macunu | dentifrice | toothpaste |
| pêşgîr | havlu | serviette | towel |
| lûfik | lif | éponge | sponge |
| kese | kese | gant de toilette | bath glove |
| şampûan | şampuan | shampooing | shampoo |

| **ODEYA RAZANÊ** | **YATAK ODASI** | **CHAMBRE A COUCHER** | **BEDROOM** |
|---|---|---|---|
| odeya razanê | yatak odası | chambre à coucher | bedroom |
| perde | perde | rideau | curtain |
| kornîş | korniş | corniche | cornice |
| text | karyola | lit | bed |
| dolaba kincan | gardırop | armoire | wardrobe |
| komedîn | komodin | commode | chest of drawers |
| doşek, binrax | döşek | matelas | mattress |
| lihêf, serrax | yorgan | couette, édredon | quilt, duvet |
| balîf (zemberiş) | yastık | oreiller | pillow |
| betanî | battaniye | couverture | blanket |
| çarşef | çarşaf | drap de lit | bed sheet |
| rû, rûber | yüz | housse | covering, case |
| şelte | şilte | surmatelas | mattress cover |
| dergûş, landik | beşik | berceau | crib, cradle |
| hêlan | salıncak | balançoire | swing |
| berrik | küçük kilim | petit tapis | rug |

| **ODEYA RÛNIŞTINÊ** | **OTURMA ODASI** | **SEJOUR** | **LIVING ROOM** |
|---|---|---|---|
| odeya rûniştinê | oturma odası | salon, séjour | living room |
| qenepe, dîwan | kanape, | canapé | sofa |
| taximqenepe | koltuk takımı | ensemble de canapé et fauteuils de salon | set of sofa and armchairs |
| palkursî | koltuk | fauteuil | armchair, easy chair |
| xwelîdank | kültablası | cendrier | ashtray |
| guldank | vazo, saksı | vase | vase |
| xalîçe, mehfûr | halı | tapis (de laine, de soie) | rug |
| merş, merşik | kıldan bir kilim türü | tapis de poils | fur rug |
| tej, tejik | çul | carpette | rough carpet |
| kulav | keçe | feutre | felt |
| dolaba pirtûkan, refika pirtûkan | kitaplık | bibliothèque (meuble), étagères | bookcase, bookshelves |
| refik | raf | étagère, tablette | shelf |
| telefon | telefon | téléphone | telephone |
| televizyon | televizyon | télévision | television |
| kursî | sandalye | chaise | chair |
| mase | masa | table | table |
| lampe | lamba | lampe | lamp |
| luks | lüks lambası | lampe de tempête | storm lantern, pressurized kerosene (white gasoline) lamp with an incandescent mantle |
| fanos, fener | fener | lanterne | lantern |
| mûm | mum | bougie | candle |
| mûmdank | mumluk, şamdan | bougeoir | candlestick |

| | | | |
|---|---|---|---|
| ampûl | ampul | ampoule | bulb |
| çira | çıra | flambeau, torche | torch (flaming) |
| fîş | fiş | fiche | plug |
| pirîz | priz | prise | socket, point |
| hewakêşî | havalandırma sistemi, vantilasyon | ventilation | ventilation, fun |
| hewakêş | vantilatör | ventilateur | ventilator |
| baweşînk | pervane | éventail | fan |
| sobe | soba | poële | stove |
| lûleya (borî) sobeyê | soba borusu | tuyau de poële | stovepipe |
| kalorîfer, sofac, sofaj | kalorifer | chauffage, radiateur | radiator |
| metbex, aşxane | mutfak | cuisine | kitchen |
| tifik | ocak | âtre, foyer | fireplace, hearth |
| tenûr | tandır | four traditionnel en argile | oven consisting of a clay-lined pit or a large, earthen jar buried in the ground |
| sêl, sêlik | sac | plaque fine de cuisson | sheet used for cooking |
| çaydan | demlik | théière | teapot |
| semawer | semaver | samovar | samovar |
| papor | gaz ocağı | réchaud à pétrole | kerosene stove |
| sifre | sofra | grand plateau sur lequel est servi le repas | tray (which has a meal laid out on it) |
| maseya xwarinê | yemek masası | table (de salle à manger) | dining-table |

# Peyvên di stranan de

## Strana Ehmed Begê û Teyar Begê

**Amadekar: Emîn NAROZÎ**

| **kurdî** | **tirkî** | **fransizî** | **îngilîzî** |
|---|---|---|---|
| çax | çağ, vakit, zaman | temps, époque | time, age, period |
| çol | çöl | désert | desert |
| egîd | yiğit | brave, vaillant | brave, stoutheared |
| eşîr | 1) aşiret, oymak;<br>2) aşiretin değer yargılarına sahip | 1) tribu ;<br>2) adj. qui adhère aux valeurs tribales | 1) tribe;<br>2) adj. s.o. who observes the tribal traditions |
| ji ... qerîn | 1) vazgeçmek;<br>2) rahat bırakmak | 1) renoncer, laisser tomber ;<br>2) laisser tranquille | 1) to give up;<br>2) leave someone in peace |
| kumişîn | 1) büzülmek;<br>2) çökmek | 1) se blottir, se faire tout petit, se tapir ;<br>2) être prostré, être diminué | 1) to shrink, shrivel up;<br>2) prostrated (by age or fatigue) |
| kupîn: gupîn | gümbürtü | tintement | boom |
| qedandin | 1) bitirmek, tüketmek, sona erdirmek, sonuçlandırmak;<br>2) dayanmak, idare etmek | 1) finir, achever, mener à son terme;<br>2) supporter, endurer | 1) to finish, complete, to carry to the end;<br>2) to withstand, to endure, to put up with |
| qedîn | 1) bitmek, tükenmek, sona ermek, sonuçlanmak;<br>2) dayanılmak, idare edilmek | 1) s'achever, se terminer, prendre fin<br>2) être supporté, se supporter | 1) to end, come to an end;<br>2) to be withstood, to be endured |
| qelibandin: qulipandin | devirmek | renverser | to overturn, knock dawn |
| qelibîn: qulipîn | devrilmek | être renversé, se renverser | to capsize, to be overthrown |
| tebat | durgunluk, dinginlik, sükunet | calmé, tranquilité | calm, quietness, tranquility |
| tebitîn | durmak, durgun olmak, sakinleşmek | se calmer, s'apaiser, se tenir tranquille | to calm oneself, to calm down |
| kirîv: | kirve | parrain (pour le mariage ou la circoncision | godfather |
| feqîr | yezidilikte şeyh Adi tarafından görevlendirilen ve Laleş'e hizmet etmek için seçilmiş kişiler | serviteur du temple yézidi de Lalesh | temple server at the Yezidi temple at Lalesh |
| asê | sarp, yalçın, sıkı | escarpé, abrupt | arduous, very steep |
| asê bûn | sıkışıp kalmak, mahsur kalmak | être bloqué, coincé | to be stuck in, be unable to move from |
| asê kirin | sıkıştırmak, sıkı duruma getirmek | rendre difficile, dresser des obstacles | to make difficulties, to set up obstacles |
| dev gerîn | dili dönmek | être à même de parler | to be able to speak, speak, explain |
| dinya kêl û bêjing kirin | dünyada gezilmedik köşe bucak bırakmamak | parcourir le monde dans tous les sens | to travel all over the world |
| ceng | cenk | guerre, combat | war, combat |
| soring | toprak boya, aşı boyası | ocre | ochre |
| şitil | fide | plant | (seedling), plant |
| sergêjî | 1) sersemlik;<br>2) sorun | 1) étourdissement, hébétude<br>2) casse-tête, tracas | 1) giddiness, dizziness, mental confusion;<br>2) a problem, a head-ache |
| cêrî | cariye | concubine | female slave, concubine |
| gulbend | püskül bağı | ruban pour nouer les franges | a tassel, a ribbon |
| teqle | takla | culbute, cabriole | somersault |
| teqle avêtin | takla atmak | faire la culbute | to turn a somersault |
| teqlek | takla atan, taklacı | culbuteur | tumbler |
| kew | keklik | perdrix | partridge |
| ta: tak, tek | emsal | égal, pair | equal, peer |
| tund: tutik, qelefîsk | çömelme | accroupissement | squatting, crouching |
| tund dan: li ser tutikan, rûniştin | çömelmek | s'accroupir | to squat down, to crouch |
| xem | gam, tasa, kaygı | chagrin, peine, soucis | grief, anxiety, concern |
| mitale | 1) mütalaa;<br>2) düşünce | 1) étude ;<br>2) pensée méditative | 1) studying;<br>2) thinking, a thought, meditation |
| ketin mitaleyan | düşünceye dalmak | être perdu dans ses pensées | to be lost in thought |
| mitale kirin | mütalaa etmek | étudier, méditer | to study, to meditate |
| çav li ... kişandin | bir şeyin beklentisi içinde olmak | être dans l'attente de qch. | to be expecting s.th. |
| kirasê Quranê: qewlikê Quranê: cilikê Quranê | Kuran kılıfı | housse de protection du Coran | cover of Koran (Qoran) |
| nixurî: nexrî | bir ailede ilk doğan çocuk | premier né | first child |
| tirad | at koşusu | course hippique | derby, a horse race |
| şiv | çubuk, değnek | bâton | rod, bar, wand, staff |
| silav û kilav | selam sabah | salutations | salutation, greeting |
| xwebixwe | kendi kendine, kendiliğinden | automatiquement, spontanément, par soi-même | automatically, spontaneously |
| şerê xwebixweyî/xwebixwetî | iç kavga, iç şatışma, iç savaş | conflit interne, guerre intestine | civil war, interstine war |
| axirdewran | ölüm kalım savaşı | apocalypse | apocalypse |
| borbor/borebor | böğürtü, yüksek sesle bağırma | beuglement criaillerie | lowing, mooing |

| | | | |
|---|---|---|---|
| cotecot/cotcot | ikişer ikişer | par pair / par deux | two by two, in twos, in pairs, in doubles |
| reh | 1) damar;<br>2) kök | 1) veine ;<br>2) racine | 1) vein, blood vessel;<br>2) root, radical, origin |
| sosret | 1) rezalet;<br>2) acaip | 1) scandale, outrage ;<br>2) adj. scandaleux, outrageant, extravagant | 1) disgrace, scandal, outrage;<br>2) scandalous, outrageous |
| şêrgele | aslan sürüsü | harde de lions | a pride of lions |
| peyda kirin | bulmak | trouver, obtenir | to find |
| polîpoşman | bin pişman | repentant, qui regrette beaucoup | very regretful, repentent |
| şevder/şeveder bûn | geceyi dışarıda geçirme | passer la nuit dehors | spend the night out or out of door |
| şênkayî | yeşillik | verdure | greenness, green vegetable |
| yadê: dayê | anne (çağrı formu) | maman (vocatif) | mam or mummy |
| dijmin, neyar | düşman | ennemi | enemy |
| dewixandin | 1) sersemletmek, bunaltmak;<br>2) çentmek, çöküntü yapmak | 1) étourdir<br>2) cabosser | 1) to stun, to daze;<br>2) to dent |

# Pêwendiyên ermenkî û kurdî yên zimên

**Amadekar: Têmûrê XELÎL**

Dîroka pêwendiyên herdu miletên binecî yên hindewropî, Ermeniyan û Kurdan, di hêla zimên de heta niha rind nehatiye lênihêrandinê û lêkolanê. Ermenî û Kurd di demên here kevnar de cînarên hev bûne. Lema jî gerekê zimanên wan herdem di nava danûsitendinê û jihevhildanê de bûyana. Ev pirsgirêk heta niha jî ne di kurdzaniyê de, ne jî di ermenîzaniyê de nehatiye azirûkirinê. Bona pirî-hindikî vê kêmaniyê dagirin, em berê xwe bidine kurteçîroka zimanê ermenî.

Di cihanê de zimanê ermenî tê hesibandinê wek yek ji zimanên herî kevnar û zengîn. Di dîroka zimanzaniyê de bi kêmanî du hezar sal in ku ew ziman heye. Zimanê ermenî di nava malbata zimanên hindewropî de tê hesibandinê wek çiqilekî cuda û serbixwe. Ermenî (an jî ermenkî) ji aliyê zanyar û keşîşekî Ermeniyan yê wê demê herî bi nav û deng Mêsrop Maştos de sala 405an bûye zimanê nivîskî (an jî nivîsarkî). Tiştekî balkêş e, ku Mêsrop Maştos li hêla Mûşê, di gundê Hasêkasê de ji dayka xwe bûye. (Ew gund niha jî heye û navê wî Xasik e). Ew hîmdarê elfabaya Ermeniyan wê demê karê xwe yê afirandariyê li Amedê, Ruhayê (Edesaya berê) û Samsata îro pêk aniye.

**Dîroka zimanê Ermeniyan pareveyî li ser 3 deman dibe:**

1. Grabar, yanî ermenkiya kevnar (sedsalên 5-11).
2. Ermenkiya Navîn (sedsalên 12-16).
3. Ermenkiya nû, yan jî *aşxarhabar* (ev ziman ku cimaeta sivîl pê diaxive). Du çiqilên vî zimanî hene: ermenkiya rojhilatê û ermenkiya rojavayê. Ev ziman ji sedsala 17an xuliqî û heta îro jî berdewam dike.

Pêşdaçûyîna zimanê ermenkî di her dewrekê de bi faktorên cî û wariyê, civakiyê û bikaranînê ve girêdayî bû. Di nava zimanzaniya Ermeniyan de fikirek heye, ku xên ji zimanê ermenkî yê kevnare yê lîteratûrî, yanê zimanê nivîsarê, herwiha zimanekî Ermeniyan yê axaftina rojane jî hebûye, ango ji sedsala 5an girtî hinek zaravayên Ermeniyan yên ji hev cudabûyî hebûne.

Zimanê Ermeniyan yê kevnar (grabar) di sedsala 5an de xuliqiye wek zimanê xaçparêziyê yê resmî. Cûrê axaftina ermenkiya kevnar di nava dewranan de hatiye guhastin û gihîştiye dereceya ermenkiya îro. Koçberbûnên Ermeniyan yên bêhesab bûne sebeb, ku zimanê wan di nava sedsalan de ewqas guhêriye, ku îro grabar bûye zimanê kilîseyan û keşîştiya Ermeniyan. Ew ziman li Ermenîstana Roavayê û xwesma jî li Konstantînopolîsê (Stembolê) ma wek zimanê çapemeniyê, dêran û dibistanan. Em nikarin bêjin ku ew zimanekî windabûyî ye. Wek mînak, kovara Yekîtiya Mxîtariyan ya li Vênêdîgê (Sûrb Xazar) heta roja îro jî bi grabarê tê weşandinê. Li hemû dêrên Ermeniyan îro jî dua û dirozgeyên xirîstiyaniyê bi grabarî têne qedandinê.

Izbata sereke, ku ev gotinên ku ezê raberî we bikim bi baweriya min ji zimanê ermenkî derbazî nava kurmancî bûne ew e, ku piraniya wan gotinan di zimanên miletên îranî de tunene. Çend gotin jî îranî ne, lê bi baweriya min pêşî Ermeniyan ji Îraniyan hildaye, dû re me ji Ermeniyan hildaye. Îzbateke dinê jî ew e, ku ew gotin ne di hemû herêmên Kurdistanê yên kurmancîaxêv de têne bikaranînê û piranî li wan herêman têne bikaranînê, ku Ermenî berê piranî bûne.

# Gotinên ermenkî di kurmancî de

**Anîzaz –** Ji gotina ermenkî **anîsvas** e, ku tê maneya:
a) nifirlêkirî, naletlêkirî;
b) nesitirî, nerehet, xwedêjêsitendî.
Di ermenkî de sîstêma sewtên bêdeng yên sêrêz–sêderece heye, wek dz, ds, ss. Ango, gotina ermenkî **anîsvas** gerekê di kurdî de cûrê **anîzaz** bistenda.

**Andêr –** Ev gotina ermenkî, ku tê maneya “bêxweyî” (**an+têr**), di kurmancî de jî bi eynî maneyê tê bikaranînê.

**Antêx –** Agirê tendûrê yê sincirî. Ji ermenkî derbazî nava kurmancî bûye.

**Axçîk –** Keçik, keç.

**Axpîn –** Ji gotina ermenkî **axb**, ku tê maneya gemar.

**Bîbik –** Di ermenkî de **bîb** e û bi maneya bîbik e. Di kurmancî de **bîbik** e, di soranî de **bîbîle** ye û tê maneya reşika çavan.

**Poşe –** Ev gotina ermenkî tê maneya cengene (çengene), mitrib (mirtiv). Gotineke kurdî ya pêşiyan jî heye: ”Poşe nabe paşe”.

**Dêz –** Yan jî ”cêz” li gelek herêmên Kurdistanê dewsa gotina kurdî **lod** bi kar tînin.

**Çortan –** Ji gotinên ermenkî **çor** û **tan** hatiye, ku tên maneya **hişk** û **dew**. Bi kurdî **keşk** e.

**Çêrmûk –** Di ermenkî de **cêrmûk** e û tê maneya çavkaniya ava germ, ava medenî. Ji gotina ermenkî **cêrm** hatiye, ku tê maneya **germ**.

**Çîrt –** Di ermenkî de **tsîrt** e û tê maneya zîrça (gûyê) mirîşkan, an jî çivîkan, teyr û tûyan.

**Gizîk** (ji gotina ermenkî **ktsîk**).

Di ermenkî û kurmancî de tê maneya **gilok** (giloka têlan).

**Horîk /xorîk –** Di ermenkî de tê maneya **cot**. Kurmancîaxêvên çend warên Kurdistana Bakur û Ermenîstanê jî vê gotinê bi kar tînin. Ev gotin di kurmancî de ji bo herdu gayên pêşîn yên kotanê dibêjin. Di gotineke pêşiyan de: ”Ne dixwim virîka we, ne diajom horîka we”.

**Kêran –** Ji gotina ermenkî **gêran** hatiye, ku tê maneya darê birî yê bê belg (pel) û çiqil. Piranî di avakirina xaniyan de tê bikaranînê, banê (arîk) xaniyan pê ava dikin. Ev gotin di herdu zimanan de jî bi eynî maneyê tê bikaranînê.

**Kêrr –** Di ermenkî û kurmancî de tê maneya **xwar**, **tewandî**, wek kevanê. ”Nukulê teyr kêrr e”.

**Kirçom – qirçon**: Ji gotina ermenkî **krtsonk** hatiye, ku tê maneya bermayên hestûyên kotî. Ev gotin jî ji **krtsêl**a ermenkî tê, ku tê maneya kotin, geztin.

**Koşkar –** Di ermenkî de **koşkakar** e û tê maneya **soldirû**. Ji gotinên ermenkî **koşîk** û **kar** tê. **Koşîk** tê maneya “sol“, **kar** jî “dirûn“. Herdu gotin bi hev re bûne **koşkakar** (koşîk + kar).

**Kartu –** Ji gotina ermenkî **kartû** hatiye, ku tê maneya nanê ku çend rojan maye û hişk bûye, lê hela kefikî nebûye.

**Kirdnak –** Di ermenkî de **girdinak** e. Li vir jî herfa ermenkî **g** di kurdî de bûye **k**, wek **g**êran–**k**êran û **g**êrandî–**k**êlendî. Ev gotin di herdu zimanan de jî tê eynî maneyê.

**Merek –** Ji gotina ermenkî **marag** e, ku tê maneya kîlera gîha û kayê, ardûyê şewatê. Bi kurdî jê re **kadîn** jî dibêjin.

**Pûrt –** Ji gotina ermenkî **bûrd** çêbûye. Di ermenkî de ev gotin tê maneya **hirî**. Di kurmancî de jî li hinek ciyan dewsa gotina **hiriyê** tê bikaranînê. Wek nimûne: **pûrta** devê, **pûrta** mirîşkan (“Ezê te pûrte vekim“, ango “Ezê te birûçkînim“).

**Boç(ik) –** Ev gotina ermenkî bi eynî maneyê di kurmancî û zazakî de jî heye. Bi kurdî “dûv“,“dêl“ jî dibêjin.

**Savar –**Ji gotina ermenkî **dzavar** hatiye. **Dzavar** genimê kutayî ye. Gava **dzavar**a ermenkî bibe xwerin, bi kurdî jê re **savar** dibêjin.

**Tixa –** Kur, kurik

**Xaç – Xaça** xaçparêzan e, ango **xaça** Îsa Pêxember e. Ev gotin ji ermenkî ketiye zimanên farisî û tirkî jî.

**Xapandin –** Ji gotina ermenkî **xabêl** e. Di kurdî de gotinên **xapînok**, **xapok** jî hene, ku di herdu zimanan de jî tê eynî maneyê.

